Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de

# AGIRÎ

Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî www.agirimedia.org Hejmar (232) 21-06-2014 Buha (150) Tûmen



**Peyama Deftera Siyasî ya PDKÎ bo kongireya dehemîn ya Partiya Sosyalîst a Kurdistanê (PSK)**




...» 5

Mistefa Hicrî:

# Dr. Qasimlo hemû serwet û heyiya xwe bo PDKÎ bi cîh hêla




**Simanarek ji bo rêzgirtina ji xebat û tekoşîna Dr. Qasimlo**

Demjimêr 2'ê piştînîvroya roja Şemiyê 21.06.2014'an (31.03.1393), bi pêşdestî û alîkariya enstîtûya Kurd li Parîsê, û Deftera Nûneratiya PDKÎ li Parîsê, rêûresmeke hejî, di hola Vîktor Hogo ya parlemênta Feranseyê de, bi beşdariya hejmareke berçav ji kesayetiyên Kurd û Îranî û Feransewî, bo heyama sê demjimêran bi rêve çû.

Di bernameya vê rêûresmê û panêlên wê de, bo bas li ser kesayetî û bîr û boçûnên Dr. Qasimlo, piştî gotara bi xêr hatinkirinê, ji aliyê Sîrjiyo Koronadoyê parlemanter ve, van kesayetiyan di çend panêl û civînan de, gotarên xwe pêşkêş kirin.

1-Xatû Coyz Bilû, mamostaya zanîngehê
2-Hêlîn Kirlolîş (Nesrîn Qasimlo)
3- Dr. Bêrnard Giranjon serokê pêşîn ê "Mîdsên Domond"
4- Mistefa Hicrî sekreterê giştî yê PDKÎ
5-Dr. Firêdrîk Tîso konsolê giştî yê pêşîn ê Feransayê li Herêma Kurdistanê

Piştî vê panêlê, û bilavkirina dîkomentarekê li ser Dr. Qasimlo, panêla duyemîn bi beşdariya van kesayetiyan bi rêve çû, û gotarên xwe pêşkêş kirin.

1-Kendan Nezan, serokê enstîtûya Kurd li Parîsê
2- Bêrnard Koşnêr, Wezîrê Karê Derve yê pêşîn ê Feransayê

Dom R:2

**PDKÎ derheq rewşa aloz ya Îraqê û piştevanî ji Herêma Kurdistanê daxûyaniyek da**



...» 2

**DAÎŞ, û derfetek dîrokî**



...» 2

**Komara Îslamiya Îranê berhemhînerê sereke yê diyardeya bidarvekirinê ye**



Mihemed Salih Qadirî

...» 4

**Roja cîhanî ya penaberan, û rewşa wan di Îranê de**



...» 7

İsmaîl Şerîfzade:

**"Di girtîgehê de Dr. Sultan piştî du salan hate îdamkirin**



...» 8

**Roja cîhanî ya Jîngehê**



...» 9

# DAÎŞ, û derfetek dîrokî




Îraq dîsan ne aram e, û mijara êrîşên DAÎŞ'ê bûye mijara herî germ ya rojevê.

Ew êrîş bû sedem ku derfeteke dîrokî dîsan ji bo Kurdên başûra Kurdistanê pêk bê, û Kurd jî bibin beşek ji vê mijarê.

Cesûrî û netirsiya Kurdan di eniya şer de, û hesta nîştimanperweriya wan û hewildana wan bo mifahwergirtina ji vê derfetê bala ragehandinên giştî yên cîhanê bo aliyê xwe rakêşa.

Lê ya giring di vê derfeta dîrokî de yekîtiya Kurdan e, ew yekîtiya ku dijminên Kurd û bi taybetî rejîma Îranê pirr jê ditirsê, û hewil dide valahiyê bêxa navbera wan de.

Lewra PDKÎ yek ji van aliyên siyasî ye ku pêdagiriyê li ser yekîtiya wan, û di hemen demê de hişyariya wan dike, û daxwazê ji wan dike ku vê derfetê ji dest nedin.

PDKÎ her çawan ku heya niha berjewendiyên xwe jî kirine goriyê berjewendiyên Herêma Kurdistanê, niha pê ve jî, kêfxweş e bi pêşkevtina roj bi rojê ya wan, û hêvîdar e ku ew bikarin herêmên veqetiyayî vegerînin himbêza gel, û di hemen demê de, bixwe nebne aliyekî şer.

Bê guman rejîma Îranê ku her tim di nava karûbarên welatên cîran de destêwerdan kiriye, wê hewil bidin ku gellek armancên ne mirovî li gorî siyaset û îdeolojiya xwe di herêmê de bipêkin, ku yek ji wan jî, ne aramkirina Herêma Kurdistanê, û neçarkirina Hikûmeta Herêma Kurdistanê ye bo vê ku ew jî bibe aliyek ji şer.

Lewra çavên Kurdan li her aliyekî Kurdistanê di van rojên hestiyar û dîrokî de, li helwesta wan ya dîrokî ye, ku PDKÎ jî hêvîdar e ku her biryar û helwesteke siyasî û leşkerî ya wan, berjewendiya neteweyî têde be, û partiyên siyasî yên vê para Kurdistanê, erka herî giran ya li ser milên xwe bi cih bînin.

## Beşdariya şandeke PDKÎ di kongireya Partiya Sosyalîst a Kurdistanê (PSK) de

**Di rojên borî de, Kongireya dehemîn a PSK li bajarê Hewlêrê birêve çû. Bi baldan bi pêwendiyên dostane û ji mêjve yên PDKÎ û PSK, Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê bi awayekî fermî, bo rêûresma vekirina vê kongireyê hatibû bangkirin, ku şandeke PDKÎ, bi serperestiya birêz Hesen Şerefî cihgirê sekreterê giştî yê PDKÎ di rêûresma vê kongireyê de beşdarî kir.**



Kongireya dehemîn ya PSK, piştî xwendina sirûda neteweyî, û ragirtina deqeyekê bêdengî bona rêzgirtina ji şehîdên Kurdistanê, û diyarîkirina heyeta serokatiya rêûresma vekirina kongirê, daxwaz ji cihgirê sekreterê giştî yê PDKÎ rêzdar Hesen Şerefî hate kirin ku gotarekê pêşkêş bike.

Cihgirê sekreterê giştî di gotara xwe de li ser pêwendiyên di navbera PDKÎ û PSK pêdagirî kir, û doza Kurdan li tewahiya perçeyên Kurdistanê de xiste ber bas, ku di gel pêşwaziya germ ya beşdaran berbirû bû, û piştre peyama Deftera Siyasî ya PDKÎ, ji aliyê birêz Rostem Cehangîrî endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ ve hate xwendin, û piştre sekreterê giştî yê PSK, birêz Mesûd Tek tevî bilindnirxanina pêwendiyên her du aliyan, spas û pêzanîna xwe bo beşdariya şandeya PDKÎ eşkere kir.

Deqa peyama Deftera Siyasî ya PDKÎ, bo PSK, di rûpela 5'ê de hatiye.

## PDKÎ: Yekîtiya xelkê û hêzên siyasî bi bandortirîn emraz e ji bo parastina berjewendiyên neteweya Kurd



Kurdistanmedia: Deftea Siyasî ya PDKÎ daxûyaniyek derheqê wan bûyerên dawiyê yên herêma Kurdistan û Îraqê bilav kir.

Deqa daxûyaniyê bi vî awayî ye:

Li roja Sêşemî 10.06.2014'an a Zayînî (20.03.1393) beşek ji parêzgehên Îraqê tûşî alozî û tevlîheviyê bûn, û hejmareke zaf ji akinciyên wan herêman bi sedema ne aramî û hebûna metirsiyê, bo cihên din ên Îraqê bi taybetî Herêma Kurdistanê aware bûn. Di vê derheqê de PDKÎ tevî eşkerekirina nîgeraniya xwe derheq çarenûsa van awareyan ku neçar bûn mal û jiyan û cihê akincîbûna xwe bi cih bihêlin, kêfxweşiya xwe eşkere kir ku ji aliyê Hikûmeta Herêma Kurdistanê ve hatine hevandin, û wekî erkeke mirovî, pêregihîştin bi jiyan û rewşa wan, girtiye stûyê xwe.

Her di derheqê vê zirûfê de ku bi ser welatê Îraqê de zal e, em hêvîdar in ku pirîşkên van ne aramiyan, Herêma Kurdistanê negire, û siyaseta dirust û rastbînane ya serok û Hikûmeta Herêma Kurdistanê, her wekî ku heya niha wisa bûye, û parêzerê xak û xelkê Kurdistanê bûye, her bi vî awayî dirêjî hebe.

PDKÎ di vê rewşa hestiyar de, tevî piştevaniya ji Herêma Kurdistanê, palpiştîkirina ji Herêma Kurdistanê û berjewendiyên Kurd di Herêma Kurdistanê de, wek erkê xwe yê neteweyî dizane, û di her rewşekê de, xwe li cem xûşk û birayên Herêma Kurdistanê de dibîne.
Diyar e ku di rewşeke wisa hestiyar de, parastina yekîtî û yekdengiya hemû xelkê û hêzên siyasî ên herêma Kurdistanê, û ji vê jî zêdetir hevdengî û palpiştiya xortên neteweya Kurd di hemû parên Kurdistanê, bi bandortirîn emraz e li pêxema parastina Herêma Kurdistanê, û berjewendiyên Kurd, ku em hêvîdar in hemû aliyek hest bi pêwîstîbûna wê bikin û pêngavên hewce hilgirin.

Digel hêviya serkevtin û ber bi pêşveçûnê, bo Kurd û parêzerên Kurdistanê
PDKÎ

**Deftera Siyasî**
**22.03.1393**
**12.06.2014**

**Doma R: 1**

3-Mark Kirawîts, rojnameger
4-Ebdulkerîm lahîcî, parêzer û serokê FDIH
5-Canatan Randal, rojnamenûs

Her yek ji van kesayetiyan di gotarên xwe de, aliyên curbicurên kesayetiya Dr.Qasimlo û bîr û hizra Dr.Qasimlo xistin ber bas û lêkolînê, û rêz ji demokratbûn û bîr û hizra pêşkevtinxwazane ya Dr. Qasimlo girtin. Ew rêûresma rêzgirtinê, heya demjimêr 5'ê êvarê, bo heyama sê demjimêran dom kir.

# Deqa gotara Rêzdar Mistefa Hicrî sekreterê giştî yê PDKÎ di parlemênta Feransê de, li jêr navê "25 sal piştî Dr. Qasimlo"



Mistefa Hicrî: "Dr. Qasimlo çi samanek bo jin û zarokên xwe bi cih nehêla, belkû her çi ku di vê derheqê de kom kiribû, li gorî wesiyeta wî, ji aliyê hevjîna wî ve, ku bi Nesrîn xanim hatiye naskirin, radestî PDKÎ hate kirin, û ya ku ji wan re ma, tenê nav û navbangê Dr. Qasimlo û şanazîkirina bi hevjîniya di gel Dr. Qasimlo bû ku di rastî de xwediyê exlaqeke bilind bû, û şanazî bi PDKÎ dikir".

**Rêzdarno!**

Her wek ku hûn hemû agehdar in, 25 sal berî niha, di roja 13.07.1989'an de, heval û hezkiriyê me, rêberê xwedî şiyan ê PDKÎ, û demokrat û azdîxwazê navdar, Dr. Qasimlo digel Ebdulla Qadirîazer, endamê Komîteya Nawendî û berpirsê Deftera Nûneratiya PDKÎ li derveyî welat, û Fazil Resûl kurdekî Kurdistana Îraqê, hatin terorkirin. Em jî li vir li hev civiyane da ku ji aliyekî ve, roja vê tal û xemhîner bi bîr bînin û bo careke din jî bêzariya xwe ji rejîma Komara Îslamiya Îranê bi boneya vê kiryara dijî mirovî eşkere bikin, û vê kiryarê şermezar bikin.

Ji aliyekî din ve yad û bîra hizra bilind ya Dr. Qasimlo wekî xebatkarekî mandînenas yê biyavê demokrasiyê di Îranê de, û dabînkirina mafê wekheviya neteweyî bo gelê Kurd di Kurdistana Îranê bilind ragirin.

Lê ji bilî vê yekê, bo min û hevxebatên min li PDKÎ de, Dr. Qasimlo rêber û hevalekî jêhatî û nûxwaz bû ku bername û rêrewa PDKÎ xiste ser rewteke serdemiyane, û nehêla ku ji riya xwe derkeve. Îde û pirensîpên demokrasiyê, mafên mirovan, û xebat di pêxema azadiya neteweya Kurd de, ji aliyê Dr. Qasimlo ve bi awayekî serdemiyane, di PDKÎ de hate pênasekirin, û bû rênîşanderê xebata PDKÎ, di pêxema armancên xwe de, û heya niha jî PDKÎ li ser vê rê û şopê dimeşe.

Di demekê de ku li Rojhilata Navîn bi awayekî giştî, serok samaneke zaf bo xwe û jin û zarokên xwe kom dikin, Dr. Qasimlo di dema şehîdbûna xwe de xwediyê tu sermayeyek madî nebû, û çi samanek bo jin û zarokên xwe bi cih nehêla, belkû her çi ku di vê derheqê de kom kiribû, li gorî wesiyetekê ku kiribû, ji aliyê hevjîna wî ve, ku bi Nesrîn xanim hatiye naskirin, radestî PDKÎ hate kirin, û ya ku ji wan re ma, tenê nav û navbangê Dr. Qasimlo û şanazîkirina bi bav û hevjîna xwedî exlaqeke bilind û PDKÎ bû.

Lê bo PDKÎ sermayeyeke mezin ya din bi cih hêla, ew jî komeke hevalên emegdar û mirov dost bû, ku bûne dostên hertimî ên xebata Kurd û PDKÎ. Di nava van hevalan de navê pizîşkên bê sînor "Mêdsîn Dêmond" zêdetir ji hemiyan bo me naskirî ye, ew pizîşkên ku di rojên dijwar ên xebatê de, ku Kurdistan li jêr bombebaran û êrîşa hêzên çekdar ên rejîmê de bû, û heya pizîşkên Kurd jî amade nebûn ku aîkariya wan bikin, bi dehan kes ji wan pizîşkan li jêr sirr û sermaya zivistanê, û heya ji riyên qedexekirî ve, xwe digehandin nav şoreşê, û pêngav bi pêngav di gel pêşmergeyên me, bi hawara birîndarên şer û nexweş û lêqewimiyên Kurd, di gundên dûrdest û herêmên çiyayî de diketin.

Bi vî awayî ne tenê canê bi sedan pêşmergeyên şervan ên Kurd, û jin û zarokên pêşmergeyan rizgar dikirin, belkû hebûna wan di nava me de, moraleke bihêz dida me.

Gellek in hejmara yên ku li cem me naskirî ne, û qet em zehmet û tekoşîna wan ji bîr nakin, niha jî ez di vê boneyê de, ez hejmarek ji ên herî naskirî li rex xwe dibînim, hezkiriyên weke Dr. Koşnêr, Dr. Giranjon, Dr. Fêrêdrîk, û... hwd.

Ez di vê boneyê de carek din jî, ji aliyê Partiya Dr. Qasimlo ve rêz digrim ji wan hezkiriyên, ku beşek ji sermayeya mirovî ya me ne, û yadgarê Dr. Qasimlo ne, û gellek kêfxweş im ku careke din xwe di nav wan de dibînim, bona rêzgirtina ji şehîdê me yê mezin.

**Hevalên rêzdar!**

Di heyama 25 salên borî de, piştî terorkirina Dr. Qasimlo guhertineke mezin bi ser civaka cîhanî de hatiye. Di vî heyamî de neteweyên bindest li her dereke cîhanê, û bi taybetî di Rojhelata Navîn, û yek ji wan Kurd, ku welatê wan ji aliyê çar dewletên herêmê ve hatiye parvekirin, hişyarî û zanyariyeke zêdetir bi dest anîne.

Lewra xebata xwe bo rizgariya ji destê stema wan hikûmetên dîktator çirrtir kirine, û di welatê Îraqê de bi nemana Sedam Husên neteweya Kurd hikûmeta xwecihî ya xwe pêk aniye, û niha mijûl e ku piroseya demokrasiyê diceribîne, û gihîştiye beşek ji daxwaziyên neteweyî yên xwe. Di Tirkiyê de ku Kurd weke Tirkê çiyayî bi nav dikirin, piroseyeke aştiyê di gel Kurd pêk hatiye, û Kurd ne tenê weke Tirkê çiyayî nahê hesibandin, belkû bi awayekî azadane nûnerê xwe bo parlemênt û bo bidestvegirtina birêveberiya şaredariyan hildibjêre.

Serbarê vê ku çarenûsa xelkê Sûriyê bi Kurdan ve jî, bi sedema terajîdiyayeke mirovî ku niha di wî welatî de heye, wisa tê çavnihêrkirin ku rewşa Kurdên vê beşê, di pêşerojê de bi man yan nemana Beşar Esed di deshilatê de guhertineke erênî bi ser de bê, lê ya ku di vê navberê de

karesat e, rewşa neteweyên Îranê û yek ji wan neteweya Kurd e.

Di Îranê de hekî guhertinek pêş hatibe, serkuta zêdetir ya azadîxwazan, bi taybetî çalakên mafê neteweyî ye.

Rûhanî ku nêzîk bi salekê berî niha bi dana soz û qewlan, û bi û rûçikeke nû ve, bo serkomariyê hate diyarîkirin, karî careke din xelkê Îranê bixapîne, û hejmareke zaf ji wan bikişîne ser sindûqa dengdanê. Lê bi derbazbûna vê heyamê, du bernameyên dij bi yek di Îranê de çûne pêş:

1-Bi sedema dorpêçên aborî, ku beşeke wê li jêr zexta dorpêçên Rojava de birêve çûn, û aboriy Îranê gehande ser lêva kendalê hiloşînê, bi neçarî Rûhanî bi biryara weliyê feqîh wate Xamineyî, serê li hemberî mercên Rojava di biyavê mehandina Oranyomê de tewand, bona vê ku dorpêçan şil bike, û di encamê rojava wav gemaroyan bi tewahî li ser Îranê rake, û hikûmeta Îranê ji kirîz û hiloşînê biparêze, bi bê vê ku bawerî bi vê sazanê hebe.

Her di vê derheqê de qise û axavtinên bi berçav nû, yên Wezîrê karê Derve yê Îranê Mihemedcewad Zerîf mixabin bandoreke zaf li ser Rojava hebû.

2-Rewşa jiyana xelkê di navxwe ya Îranê de, serkut û zext li ser tekoşerên siyasî, çalakên biyavê mafê mirov, mafê jinan, kedkaran, û bi taybetî neteweyên Îranê, û yek ji wan Kurd, û her wisa cudabîrên Îranî û bi giştî hemû tex û qatan, bi zehmet û metirsîdartir bûye.




Di heyama yek sal serkomariya Rûhanî de, tenê di Kurdistanê de deh kes ji çalakên siyasî, ji aliyê hêzên rejîmê ve hatine girtin, û herwisa 10 kolber hatine kuştin û birîndarkirin, û hejmareke berçav ji azadîxwazan bi sedema zext û zoriya rejîmê ve, neçar bûn ku welat bi cih bihêlin, û 38 kes hatine îdamkirin, û 4 kesên din hukmê îdamê bi ser wan de hatiye sepandin, 35 kes bi sedema van mînên ku ji aliyê hêzên rejîmê ve, li cihên curbicur ên kurdistanê hatine çandin, hatine kuştin yan birîndar bûne.

Tenê li şeş mehên yekemîn ên serkomariya Rûhanî de, 250 kes hatine îdamkirin, rejîma Komara Îslamiya Îranê di heyama yek sala borî de, di biyavê hejmara îdaman di asta cîhanê de, piştî welatê Çînê pileya duyemîn heye.

Lê bi daneberhev ya nifûsa Çîn û Îranê, Komara Îslamiya Îranê, di asta yekemîn de cih digre.

Herwek serdema serkomariya Ehmedînijad di demekê de ku bêkarî, giranî, tûşbûna bi maddeyên sirker, û nexweşiyên din ên civakî, her roj zêdetir geşe kir, û bi rêjeya kesên ku li jêr hêla hejariyê de ne, zêde bûye, û îmkanat û darayiya zaf ya vî welatî, bo trombêla şer a Beşar Esed û wêrankirin vî welatî tê danîn, û bi Hizbullah Lubnan û girûpên din ên mezin û biçûk ên terorîstî, tê dayîn, yan jî diçe hisabên bankî, yên deshilatbidestên hikûmeta Tehranê de.

Em li ser vê baweriyê ne ku rejîma Komara Îslamiya Îranê, ne tenê di bîrûbawer, lê li rûyê neçarî ve herwek ku heya niha nîşan daye, serê xwe bo mercên Rojava di derheq pirsa mehndina Oranyomê de ditewîne, û deriyê bazerganiya Îranê bi rûyê Rojava de, tê vekirin.

Di vê beşê de heya vêdebirina gemaroyan Îran li gorî wan xalên ku jêre tê diyarîkirin, çalakiyên xwe yên etomî didomîne, lê piştî wê, her demekê ku bikare, çalakiyên xwe bi awayekî veşartî, bi armanca destpêregihîştina bi çeka navikî, wê dest pê bike.

Xelkê Îranê ew çavnihêrî ji welatên Rojavayî hene ku di vê dewreyê de, berjewendiyên bazerganî yên wan, nebin sedema piştguhxistina binpêkariyên mafên mirovan di Îranê de, her wek çawan zexta gemaroyan rejîma Îranê neçar bi paşekêşkirina ji mehandina Oranyomê kir, ew zext dikare li paşekêşekirina bi rejîmê derheq bi berçavgirtina mafê mirovan jî bi bandor be.

Di dawiyê de, dixwazim ku spasiya xwe pêşkêş bikim bi: Parlemênta Feransê ku bo çenedemîn car îzin dane ku rêûresma rêzgirtin û bilindragirtina yad û bîra şehîd Dr. Qasimlo di hola parlemêntê de pêk bê, bi enstîtûya Kurd bi serokatiya birayê me yê birêz Kendal Nezan ji hevalên Dr. Qasimlo, bona pêkanîna vê rêûresmê, bi we hemû rêzdaran, bi boneya beşdarîkirina we, di yad û bîra 25'emîn salvegra terorkirina Dr. Qasimlo, Ebdulla Qadirîazer û Fazil Resûl de.

# Nerîna Lîderan



**Yosif Mihemed:**

“Kurd dest ji Kerkûkê nakişîne”.



**Kemal Borkay:**

“Ne diyar e ku Ocalan daxwaza çi bo Kurdan dike”.



**Seyîd Emar Hekîm:**

“Emê Îraqê bikin goristana DAÎŞ’ê”.



**Rûhanî:**

“Hekî dewleta Îraqê daxwaza alîkariyê ji me bike, emê alîkariya wan bikin”.

# Peyama Deftera Siyasî ya PDKÎ bo kongireya dehemîn ya Partiya Sosyalîst a Kurdistanê (PSK)




**Rêzdar kek Mesûd Tek sekreterê giştî yê PSK!**
**Rêzdaran endamên serkirdayetî û nûnerên beşdarbûyî di kongireya dehemîn a PSK de!**
**Xûşk û birayên hêja!**
**Digel silav û hurmetên birayane!**

Li ser navê Deftera Siyasî a PDKÎ, bi boneya pêkanîna kongireya we ya dehemîn, em bi germî pîrozbahiyê li we dikin, û hêvîxwaz in ku kongireya we, pirr berhem be, û biryarên wê kongireyê jî, rê ji bo ber bi pêşveçûn û nêzîkbûna bi armancên we, û vegeşîna partiya we xweş bikin.

Rêzdarno! Di vê derfetê de, em bi hewce dizanin ku li ser têkiliyên PDKÎ û PSK pêdagiriyê bikin, û hewcehiya berfirehtirkirin û bihêzkirina van têkiliyan bixin ber çavan. Ew têkiliya ku bi dehan salî ye di navbera me û we de, pêk hatiye, û berdewam geşe kiriye.

Pêwendiyek ku weke hewcehiyeke neteweyî, xwe derxist, û di pêvajoya karê xwe de, mînaka herî berçav ya sedaqet û rastbêjî û girêdayîbûna bi bingehên neteweyî bû. Em weke PDKÎ şanaziyê bi têkiliyên di navbera xwe û we de dikin, û rêz û hurmetê ji helwesta bi biratî ya hertimî ya we digrin.

Taybetmendiyên bilind ên PSK, rastbîniya siyasî ya vê partiyê, û emegdarî di dostayetî û helwesta di dema xwe de ya rêberatiya PSK, rûçikek tewaw siyasî û exlaqî û alîkarîkirinê bi vê partiyê bexşiye, ku em hêvîdar in ew rûçik û ew siyaset her tim parastî, û rû li vegeşînê be.

Bi vê nasyariya ku me li ser partî, rêber û têkoşerên we heye, em xatircem in ku rewşa rastbîniya kongireya we, û dilsozî û berçavgirtina pêvajoya bûyeran di herêmê de, dibin sedema vê ku biryarên hewce û dirust, berhemên kongireya we bin.




PDKÎ kêfxweş e bi vê ku ji aliyekî ve, tu astengiyekê nekariye ji giranî û giringî û dostanebûna têkiliyên me kêm bike, û ji aliyekî din ve, pêngavên we bira û hezkiriyê me, ji xebat û pêşveçûnê sist bike, lewra serkevtin ji bo we, û pêwendiyên bê mînak ên di navbera me de ye.

Rêzdarno!

Kongireya dehemîn a partiya we di rewşekê de tê girtin, ku guhertin bi lez rû dan, û rû didin. Her çend ku heya niha berhema wan guhertinan, rizgariya yekcarî ya Kurdan nebûye, lê wan guhertinan, doza Kurd û rewşa xebata Kurd, ber bi pêşve biriye, û dema haşakirina ji Kurdan derbaz bûye, û pêvajoya bidestxistina mafê Kurd ketiye rojevê de.

Nirxandina hemû guhertinan, û nirxandina doza Kurd li her çar perçeyên Kurdistanê, ku li bakûr, başûr, rojhelat û rojava, di her yek ji wan ciyan de, bi awayekî ne, ew erka herî pêwîst e, û pîlanên dijminên maf û azadiyên Kurdan jî, bê qas in, ku bê guman tu yek ji wan, ji we veşartî nînin.
Ya ku vedigere ser Kurdistana Îranê, hewce ye bihê gotin, ku di Îranê de rejîmek bi ser çarenûsa neteweyên Îranê de zal e, ku rejîmeke paşvemayî û bîrteng e.

Ew rejîma li ser bingeha îdeolojiya mesebê Şîe, û felsefeya wîlayeta feqîh qalibê xwe girtiye, lewra çavkaniya cudahîdanînê ye di navbera neteweya serdest, û neteweyên li jêr stemê de, û di navbera peyrewên ayînan, û heya di navbera peyrewên ayînzayên Îslamê de.

Vê rejîmê bawerî bi demokrasî û mafê mirovan nine, û wan weke diyardeyên Rojavayî dihesibîne, ku dibe li dijî wan diyardeyan bisekine.

Rejîma Îranê, bawerî bi mafê neteweyan û wekheviya jin û mêran tuneye. Eva jî di demekê de ye ku PDKÎ û xortên neteweya Kurd di Îranê de, daxwazkarê demokrasî, mafên mirovan, mafê neteweyî û wekheviya jin û mêran di nav malbat û civakê de ne, û netebahî di navbera xwestekên Kurd û azadîxwazên Îranê ji aliyekî, û naweroka kevneperestane û dîktatorane ya rejîma Komara Îslamiya Îranê ji aliyekî din ve, di ew qasê xwe de ye.

Ji bilî vê yekê, ew rejîma vegeşînerê gendeliya malî, bê exlaqî, û îtiyad, û li dijî kêfxweşiya xelkê Îranê ye.

Bi vê amajeya Kurt, em dikarin hest pê bikin ku xebata Kurdan di Îranê de, çi qas dijwar û zehmet e. Bi vî halî jî neteweya Kurd û PDKÎ, berdewam xebatê li dijî vê rejîmê dikin, û ji bo bidexstina xwestekên mirovî û demokratîk, û mafê neteweyî li şêweyên curbicur de, tekoşînê dimeşînin, lewra hejmareke zaf ji têkoşerên Kurd û bi taybetî PDKÎ, li jêr şopandin, girtîgeh yan hukmê îdamê de ne.

Di Tirkiyê de, hûn bixwe ji rewşa Kurd şareza û agehdartir in, û li Rojava de jî, derfetek heye ku hekî pawanxwazî û hejmonîxwaziya aliyekî nebaya, me dikarî ku bi yekîtiya hêzên Kurd di vê para Kurdistanê de, zêdetir hêvîdar bin, û bandora Kurdan bi ser pêvajoya bûyeran di wî welatî de, wê zêdetir biba.

Di başûr de jî, desthilateke Kurdî heye ku parastin û piştevanîkirin ji wê, erka li ser milên me hemiyan e.

Bi berçavgirtina tewahiya van rastiyan, hewcehiya yekîtiya Kurd di her perçeyekê de,û hevsozî û piştevanîkirina Kurd li hemû perçeyên Kurdistanê, erkeke neteweyî ye, ku bidestvehatina wan, dikare bandora xwe li ser doza Kurd bi giştî danê.

Dom: R 6



# Komara Îslamî ya Îranê berhemhînerê sereke yê diyardeya bidarvekirinê ye

**Mihemedsalih Qadirî**



Cihê mixabiniyê ye ku di sedsala 21'an de, mirov bas ji diyardeyekê bike ku çavkaniya wê vedigere bo kultureke paşvemayî, û dab û nerîteke kevneşop ya çend sedsalên derbazbûyî ji dîroka mirovahiyê, û cîbicîkirina wê diyardeyê jî, di vê serdema jiyana mirovahiyê de, cihê şermezariyeke mezin e bo civaka cîhanî.

Herçend di piraniya welatên cîhanê de, îdam bi yasayê hatiye qedexekirin, lê di welateke dîktator a wek Îranê de, xelk di destê wê de dinalînin, û tu nîşaneyek rohn ji kêmkirin û nemana wê nahê xûyakirin.

Di Îranê de roj nine ku guhê me li peyva îdamê nebe, û bi bihîstina vê peyvê em neveciniqin. Diyardeya Îdamê bo Komara Îslamiya Îranê, bûye kareke asayî û rojane ku ji aliyê rejîmê ve jêre kultursazî tê kirin û bi komkirina xelkê di dema cîbicîkirina hukmê îdamê, û lênihêrîna wan dîmenên diltezîn, hesta mirovdostî û jiyan heziya xelkê bi tewahî diherifînin û wan berbirûyê nexweşiyên derûnî dikin. Encama vî karê kirêt ew e ku mixabin rojane em şahidê xwe xendiqandina xelkê medenî ên Îranê û rojhelata Kurdistanê dibin ku di temenê navbera 15-70 saliyê de bi sedemên curbicur xwe dixendiqînin û rojane ew rêje zêdetir jî dibe, û civak bi tewahî tûşî şok û ne aramiya civakî dibe.

Ew kar selmînerê vê rastiyê ye ku rejîm bi sedema tirs û nîgeraniya ji radebider ji deshilata xwe, hawara xwe dibe ber kiryarên weha emniyetî, derheq hemwelatiyan, û dixwaze ku bi ew qasê dîktatorî, û tundûtîjiyê, li dijî cudabîran û dijberên nîzama xwe dirêjiyê bide cinayetên xwe.

Ji aliyekî din ve ew pêla bidarvekirinan, vê rastiyê nîşan dide ku li rejîma Îranê de eva tak nînin ku di dema wergirtina berpirsayetiyên hikûmetî de, tevî diruşm û sozên xwe ku di dema hilbijartinê de, didin xelkê, bikarin guhertinekê di jiyana vî xelkî de pêk bînin, belkû eva ew yasayên neguher hukm dikin ku bingeha wan li ser yasayên esmanî û dab û nerîtên civaka paşvemayî, hatine danîn û ji aliyê karbidetsên wê rejîmê ve birêve diçin.

Di rewşeke weha de ne tenê çavnihêriya vê yekê ji rejîmê nahê kirin ku dilê wê, bi halê çarenûsa bendkiriyên siyasî ên Îranê bi giştî, û Kurdistanê bi taybetî bişewite, belkû ji bilî girtiyên siyasî, pakane hisabê di gel xelkê asayî û kasibkarên li ser sînorên destçêkirî, û heya di gel pez û ajelên wan jî, bi taybetî devaran, bi hêcetên curbicur dike, û reşekujî û terorê encam dide.

Ew karên wan jî, ne tenê her nîşaneya seqamgîrî û hêza vê rejîmê nine, belkû nîşana tirsa vê rejîmê ji pêşeroja lerzok û biyom ya wî bixwe ye.

Ji aliyekî din ve jiber ku felsefeya hebûna vê rejîmê li bingeh de, di gel azadî û mafên mirov ne teba ye. Serbarê hebûna endametiya Îranê li peymannameyên navneteweyî ên mafê mirov û peymannameyên din ên navneteweyî de, ku herçend li heyama 35 sal deshilatdariya vê rejîmê de, heya niha ne tenê bandoreke wisa li ser kiryarên dijî gelî ên vê rejîmê, derheq hemwelatiyên xwe de nebûye, heya di gellek qonaxan de bi sedema sat û sewdayên bazerganî û berjewendiyên aborî ên civaka navneteweyî di gel Îranê, xelkê Îranê zêdetir ji her demekê baca binpêkariyên vê rejîmê di warê mafê mirov û pîwer û pirensîpên wê de dane.

Ji aliyekî din ve mixabin ne tenê Komara Îslamiya Îranê çi yek ji wan peymananmeyên ku wajo kirine, cîbicî nekirine, û ji aliyê civaka cîhanî ve jî, neketiye bin zexteke wisa, bona girêdayîbûna bi van peymannameyan, lewra ew rejîma dijî gelî di kiryarê de, ne tenê bixwe pêbend bi berçavgirtina van pîvanên navneteweyî ku pêwendîdar bi mafên mirovan in, nezaniye, belkû heya bi kiryar jî, di rastaya dijayetîkirina van yasa û risayan de jî kar kiriye, û heya gellek caran rê nedaye, ku raporthinêrên NY bo mafên mirovan serdana Îranê bikin û ji nêz ve radeya binpêkariyên mafên mirovan ji aliyê vê rejîmê ve binirxînin.

Lerwa pêkanîna rewşê ji bo karê hevpar bo herifandina vê rejîmê û cihgirkirina sîstemeke demokratîk tenê çareser e bo rizgariya yekcarî ji destê van bedbextiyan.

Di rewşeke wisa de erka herî sereke li ser milê aliyên siyasî di vê derheqê de, ew e ku bi yek gotareke siyasî, yan tevî eşkerekirina kiryarên ne mirovî yên Komara Îslamî li bîr û raya giştî ya cîhanê de, û handana rêkxirawên mirovdost ji bo xwedî derketina ji kerameta mirovan, û bi cî gehandina erka exlaqî ya xwe, derheq bi sedan bendkiriyan, û bi milyonan mafbinpêkiriyên Îranî, tekoşînê bikin û dijayetiya di gel Îslamê bi her şêweyekê ku ji dest wan tê, bêxin nav mêjyê her takeke civakê, ji karê siyasî yê hizbî re veguhêzin bo nav civakê, û bi vî karî çanda dijî îdamê bibe armanca xebata demokratîk û rizgarîxwaziyê li pêxema hiloşandian vê rejîmê, û binbirkirina yekcarî ya îdamê.

**Doma: R 5**

Em li gorî rastbîniya we birayên xwe di vê kongireyê de, xatircem in ku hemû ew pirsên ku di vê peyama dostane de, me bi kurtî amaje pê kirin, di kongireya we de, hûrtir û zêdetir wê bikevin ber bas û şirovekirinê, û her eva jî vê hêviyê çê dike ku kongireya we, encameke dilxwaz û dost dilxweşker hebe.

Silav û pîrozbahî li we rêzdaran, û ji riya we ve, bo hemû endam û alîgirên partiya we

Serkevtin bo kongireya dehemîn ya partiya birayê me, Partiya Sosyalîst a Kurdistanê

Berdewamî û ber bi pêşveçûn bo pêwendiyên tendurust û birayane, yên di navbera me de

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê

**Deftera Siyasî**
**Gulana 2014'an a Zayînî**
**Cozerdana 1393'an a Rojî**





# Roja cîhanî ya penaberan, û rewşa wan di Îranê de

Arif Vêlzî



Sala 1951'an wate 63 salî berî niha neteweyên Yekbûyî roja 20'ê Hezîranê wekî roja Penaber diyarî kir, û konvansioyona taybet bi mafê penaberan bi navê UNHCR ava kir. Diyar e ku hevdem di gel diyarîkirina vê roja cîhanî, her ji aliyê konvansiyonê ve hinek pêwer û pênaseyên taybet di derheqê penaberan di cîhanê de hatin kirin, bi vê manayê ku li gorî pênaseya konvansiyonê penaber bi kesekî tê gotin ku bi sedema cudahiya regezî, mesebî, neteweyî û yan endametiya di girûpa yan partiyeke siyasî yan civakî, rû li derveyî welat dike, û bi sedema tirs ji azar û îşkence, û heya kuştinê razî bi vegeriyana bo welatê xwe nabe.

Li hemberî vê yekê de jî, erka li ser milê hemû welatên endam li konvansiyona taybet bi penaberan e ku li gorî yasa û rênimayiyên xwe, moleta mana berdewam wate îqame, bidin xwazyarên penaberiyê bona vê ku bikarin bigihîjin gellek mafên mirovî, û hemwelatîbûnê weke azadiya ra derbirîn, û xwendin û nivîsîn û azadiya hatûçûn û karê fermî û mafê xwe berbijarkirin û ..hwd.

Bi berçavgirtina van eslan, komara Îslamiya Îranê yek ji wan welatan e ku konvansiyona taybet bi penaberan wajû kiriye, lê em dibînin ku berçavgirtin û girêdayîbûn bi made û bendên konvansiyonê di vî welatî de, li asta xwe ya herî nizim de ye.

Bo mînak em dikarin qala penaberên Efxanî di Îranê de bikin ku li rewşa herî xirap ya jiyanê de dijîn, û heya ji mafên herî destpêkî ên weke xwendin û xwarin û perwerdeyê bê par in, û rojane jî nûçeya bidarvekirinê li jêr navên curbicur û bazerganîkirina bi jin û zarokên penaber li Îranê serdêra piraniya medyayên navxweyî û derveyî ên welat e.

Heya kar gihîştiye cihekî ku di çend rojên borî de eşkere bû ku Komara Îslamniya Îranê li afirandina herî nû ya terorîstî ya xwe de, piştî hînkirina di warê leşkerî û şerkirinê de, penaberên Efxanî bi armanca karê terorîstî û emeliyatên xwekujî, dişîne bo welatê Sûriyê.

Lê xala sereke û cihê baldanê eva ye ku welatê Îranê bi hemû netewe û olên xwe ve, serbarê hebûna vê jêrxana aborî ya dewlemend û bi hêz ku di cîhanê de bê mînak e, bi sedema siyaseta şaş ya deshilatdarên hikûmeta Tehranê, li derheq hewlên şovînî bona asîmîlekirina regezî û çandî ya neteweyên cuda ji neteweya serdest, û herwisa bi sedema kirîza aboriya welat û serkuta bê rehmane ya cudabîran, yek ji wan welatan e ku xelkê wê, rêjeya herî zêde ya penaberan ber bi derveyî sînorên xwe, û bi taybetî welatên Rojavayî pêk tîne.

Lewra diyardeya helatina mêjiyan çemkek e ku ji bo me hemiyan ne tişteke nû ye, û bi başî em dizanin sedemên wek geşekirina madeyên hişber, nebûnba azdiyên curbicur, gendeliya siyasî, aborî û îdarî, cudahî bi hemû şêwazên xwe ve, bê dadî, nebûna derfeta kar, girani-ya rojbiroj û dahata kêm, seqetbûna sîstema perwerde û gellek sedemên din, bûne palderek, ku hêza şareza û pispor, û xwediyê bawernameyan, û yan bi gotineke din, ew mêjiyên ku sermaye û garantiya pêşeroja Îranê ne, bona bijîva jiyanê û xwenîşandan û vegerxistina hêz û şiaynên xwe rû li wlatên pêşkevtî bikin, bê guman eva karesatek e ku her di destpêka serhildana xwe de, şarezayên karûbarên aborî û civakî hişdariya vê yekê dan ku diyardeya helatina mêjiyan cuda ji vê ku dibe sedema jidestçûna hêza pispor û lêhatî ku dikare roleke giring li perwerde û weke pispor hînkirina nifşên piştî xwe bibînin, dibe sedema zirar û ziyanek zaf ya madî, ku şûnwarên wê bo heyameke zaf li ser leşê aboriya welat dimîne.

Her di vê rastayê de jî bû ku sindûqa navneteweyî ya pere ragehand ku salane zêdetir ji 150 hezar xwendekar ji Îranê derdikevin, û eva jî li her salekê de zêdetir ji 150 milyard dolar zirarê li aboriya welat dide, û rejîm jî amade nine ku avriyeke herî kêm jî, li vê meselê bide.





# Îsmaîl Şerîfzade (Qalesor):

## “Di girtîgehê de Dr. Sultan piştî du salan hate îdamkirin, û hevalê me yê din 15 sal cezayê girtinê bi ser de hate sepandin”.

Îsmaîl Şerîfzade, naskirî bi Qalesor kurê Ebdulla sala 1964 (1343), li gundê Paşbilaxa ser bi herêma Pîrmihemed a Bokabê li malbateke cotkar de, ji dayîk bûye.

Qalesor nasyariya xwe di gel PDKÎ weha tîne ziman: “Hevdem di gel şoreşa gelên Îranê, em şeş kes li Bokanê, me malek bi kirê girtibû, û me li wir ders dixwand, Bokan tejî bû ji binke û baregehên weke PDKÎ, Komele, Pêykar, Mocahidîn, Tûde, Rahê karger, Çirîk û ...hwd. Hemû partiyan heftiyane mîtîng bi rêve dibirin, li wir divêt te xwe sax kiriba ku di gel kîjan patiyê yî, û tu kes nebû ku bê alî be, lê ew xelkê ku me didît, çi li xwendegeh û çi jî li bazarê, û bi giştî xelkê Bokanê ku alîgirê PDKÎ bûn, ji alîgir û endamên partiyên din cuda bûn, û gellek baştir dihatin berçav.

Roja mîtînga Bokanê, Dr. Qasimlo hat û di nava meydana topa pê de, qise kir û basa “şeş madeyan” kir. Ez ji axavtinên wî tê negihîştim, lê partî û rêkxirawên din, dest kirin bi bê rêzî û dana dirûşmên weke “merg bo sazişkar”, lê Dr. Qasimlo gellek bi aramî û ser hemda xwe, bersiv da, û vê bersiva wî gellek bandora li ser min danî.

Qalesor tevlîbûna xwe bi refa pêşmergeyên PDKÎ re wisa anî ziman: “Sala 1981’an ku bo yekem car Bokan ji aliyê hêzên Komara Îslamiya Îranê ve hate girtin, em vegeriyane gundê xwe, û me dev ji xwendinê berda.

Komîteya navçeya Pîrmihemed ya PDKÎ, wê demê di gundê me de bû, û min dixwest ku bême bo pêşmergatiyê, û min bihîstibû ku bi sedema kêmiya temen ez nahême wergirtin, lewra me di roja 17. 12 1359 (1982) biryar da ku em herin xwe bi Yekîtiya Lawan bidin naskirin ku binkeya wê ya sereke li gundê Sedr Abad ya ser bi herêma Pîr Mihemed de bû. Piştî du salan mana li Yekîtiya Lawan de, ez bi awayekî fermî bona pêşmergatiyê şandim bo Komîte Şaristana Bokanê.





Îsmaîl Şerîfzade (Qalesor) û hevjîna xwe

Qalesor ku di 20.04.1365 (1986) an de bo karê hizbî diçe navxwe ya Kurdistanê de, û piştî 18 rojan tevî du hevalên xwe têne girtin bi vî awayî bas ji van rojên nexweş dike: “Sala 1365 (1986) ez û Sultan Hacî Resûlî naskirî bi Dr. Sultan û hevalekî wî, bona karê hizbî, em çûne navxwe ya Kurdistanê, em çûne herêma Ferha Taş, û piştî 18 rojan geriyanê, şev em li gundê Qedîm de man, bê xeber ji vê ku sîxoreke Komara Îslamiya Îranê me dişopîne. Em di malekê de man ku pîrejineke bi temen li wir bû, û guhên wê giran bûn, şev bi sedema mandîbûnê em raza bûn, û çar dewra me hatibû girtin.

Sibezûya wê rojê, em hatin girtin. Di girtîgehê de Dr. Sultan piştî du salan hate îdamkirin, û hevalê me yê din 15 sal cezayê girtinê bi ser de hate sepandin, û ez bixwe jî piştî sê salan, mana di girtîgehê de, cezayê îdamê bi ser min de hate sepandin. Min herçend li dijî vî hukmî, nerazîbûna xwe nîşan da, lê dîsan hukmê min nehate guhertin. Lê cara duyemîn ku min nerazîbûna xwe nîşan da, hukmê min bû 19 sal. Di girtîgehê de bûm heya salekê berî mirina Xomêynî, ku navbirî efûyeke giştî da. Di roja 20.05.1370 (1991) ez hatim berdan. Ji wê demê ve min her pêwendî di gel PDKÎ ve hebû, lê di sala 1379 (2000) de min bi awayekî fermî pêwendî bi Teşkîlata PDKÎ ve girt, heya sala 1381 (2002), di dema eşkerebûna tîmeke pêşmergeyan, ez jî eşkere bûm û hatim nava refên PDKÎ, û heya niha jî berdewam im.

Qalesor roja herî xweş ya pêşmergatiya xwe weha tîne ziman: “Sala 1365 (1986) ez li Gewredê bûm, ez û şehîd Silêman Feramerzî çûne goviya Hemamê, kesek ji sekretariyetê hate xwar bi cantayeke şîn, ew kes Dr. Qasimlo bû, piştî ehwalpirsînê, ji me pirs kir ku gelo hûn di goviya hemamê de ne, me jî got belê. Wî got ku min daxwazek ji we heye, ew jî ew e ku PDKÎ mêhvanên wê hene, û hekî hûn goviya xwe bidin min, ezê hemamekê bilez bikim li ber mêhvanên xwe. Me jî bi kêfxweşî ve her zû got kerem ke. Piştre ku ji hemamê derket, berpirsê hemamê agehdar kir ku van du ciwanan goviya xwe dane min, bila goviya wan têk neçe. Xakî û xelkîbûna Dr. Qasimlo di wê rojê de, bû sedema vê ku bîranîna wê rojê, bo heta-heta di mêjiyê min de bimîne”.

Qalesor roja herî nexweş ya jiyana xwe jî weha bas dike: “Sala 1368 (1989) ez di girtîgeha Miyandoawê de bûm. 170 kes, em di holekê de bûn, ku nêzîk bi 10 kes ser bi Komele û Mucahidînê bûn, û 160 kesên din endam û alîgirên PDKÎ bûn. Televîzyona Îranê di nûçeyekê de got ku di civîna du heyetên nûneratiya PDKÎ bi serokatiya Dr. Qasimlo û Komara slamiya Îranê li Viyenê, teqe hate kirin û serjimêriya kuştî û birîndaran li ber dest de nine, lê di nûçeya duyemîn de ragehand ku Dr. Qasimlo hatiye şehîdkirin. Eva roja herî nexweş ya jiyana min bû, jiber ku di ew qasê bê deshilatiyê de, xem û kovanan ew hol dagirt”.

Qalesor derheq pêkanîna jiyana xwe ya hevpar weha dibêje: “Sala 1370 (1991) ji riya xûşka xwe ve, di gel keçekê bi navê Zeyneb Moxtarî, keça Seîd xelkê gundê Qebran, ez nasiyar bûm, û her di vê salê de min jiyana hevpar di gel wê, pêk anî, û di gundê Mîrawaya Bokanê de, me şahiya xwe kir û berhema jiyana me jî çar keç in”.

Qalesor bi vê hêviyê dawiyê bi hevpeyvîna xwe tîne: “hêviya min ew eku ez rizgariya çar perçên Kurdisanê ku xewa bav û bapîrên me ye bibînim”.



# Roja cîhanî ya jîngehê

Îdrîs Sitwet



Parastina jîngehê, pêk tê jî parastina hemû çavkaniyên bingehîn ên xwezayî, ji wan madeyên zirardar, ku bo jiyana hemû jîndarên ser erdê hewce ye.

Metirsiyên germbûna topa erdê, heliyana cemedan, zêdebûna fabrîkeyan û gazên kîmyayî û trombêlan, û zêdebûna nifûs û ...hwe, ku bandora xwe li ser pîsbûna rewşa hewa û jîngehê heye, û niha parastina jîngehê bûye hewcehiyek bo parastina hemû akinciyên cîhanê.

Rêkxirawa NY 42 salan berî niha, di 5'ê Hezîrana sala 1972'an de, konferansek li jêr navê mirov û jîngehê li welatê Siwîdê û li bajarê Stokholmê bi rêve bir, û ew roj wek roja jîngehê bi nav kir, û hevdem di gel vê konferansê, NY programek bi navê UNEP (Pirograma jîngehparêziya NY) pesend kir, bona vê ku mirov bi bernameyeke bi bandortir bo parastina jîngehê çalakiyan ji xwe nîşan bidin, û vê rêkxirawê hemû salê bona çalakkirina hêz û şiyana mirov bi armanca xatircem bûn ji berbirûbûna tewahiya neteweyên cîhan, bo pêşerojeke bi tenahî, aram, û pirr ji xweşbextî û hilmijîna hewayekî salim bo jîndaran di jîngehê de, rêûresmên berfireh û curbicur wek rêpîvan, baskilsiwarî, û birêvebrina konsertên kesk, pêşbirkiyên wênekêşanê, mijarnivîsî, darçandin û paqijkirin û ....hwd pêk tîne, û armanc ji pêkanîna van rê û resman, agehdarkirina xelkê bo jîngehparêzî û pêşgirtin ji pîsbûna hewayê ye, û heya niha di cîhanê de çendîn konferans bo parastina jîngehê pêk hatine, û hemû salê bo parastina jîngehê rêz ji vê rojê tê girtin, lê serbarê van çalakiyan ku hemû salekê ji aliyê jîngehparêzan ve bo jîngehparêziyê tê kirin, dîsan eşkere dibe ku niha jî germaya topa erdê û heliyana cemedan û hebûna gaza kîmyayî metirsiyeke sereke ye bo ser jîndaran, û sedema sereke jî destêwerdana mirov e li xwezayê, û sedema xolqandinê ye bo bidestxistina berhema hewce û sermaye û bazerganîkirinê. Di cîhana îro de hemû welatek, hemû sîstemeke siyasî, hemû partiyek, beşeke peyrew û pirogramên xwe bo jîngehparêzî, yan siyaseta jîngehparêziyê dadinên, ew jî bi vê sedemê ku jîngehparêzî bûye hewcehiyeke serdem a civakê, û wek hemû beşên din giring e.

Ew jîngeha ku em basê dikin li welateke wek Îranê de, sadetirîn û bê buhatirîn rol pê hatiye dan, û deshilatdarên Îranê bûne sebebkarê xirabkirina jîngehê li Îran û Kurdistanê.

Metirsiyên deshilatdarên rejîma Îranê bo jinavbirina xweza û jîngeha Kurdistanê, bo mînak hişikbûna gola Urmiyê, û egera jinavçûna gola Zirêbar û birîna daristanan û şewitandina wan.

Roj nine ku nûçeya jinavbirina daristan û şewitandina wan li herêmên curbicur ên Kurdistanê, bi armanca bazerganîkirin û jinavbirina wan, bilav nebe, ku ew jî bandorê li ser kêmbûna jîndarên avî û ser zewî, dadinên, û jîngehê ber bi jinavçûnê ve dibin.

Li Kurdistana Îranê bi sedema van kiryarên li dijî jîngehê ku ji aliyê deshilatdarên Îranê ve bi awayên armancdar derheq jîngehê ve têne kirin, xelkê Kurdistanê bi neçar û bo parêzgarî ji jîngehê, bi awayekî xwerist beşdariyê li helmeta jîngehparêziyê de, ew jî bi awayekî çalak, wek darçandin, û paqijkirina seyrangehan û azadkirina ajelên çiyayî dikin, û niha bi xweşî ve dehan rêkxirawên xwerist ên jîngehparêz li Kurdistana Îranê hatine avakirin. Di rastî de sedema jinavbirina xwezaya Kurdistanê, û hişikbûna golan, û hişîkbûna daristanê, vedigere bo giringînedan bi xwezaya Kurdistanê, ji aliyê deshilatdarên Îranê ji aliyekî, û ji aliyekî din ve, dijayetîkirina digel Kurdistanê wek Kurd.



# Hunermendekî Kurd ji ber rewşa aborî ya xirab xwe kuşt



(Rûdaw)- Li gorî nûçegehaniyan: Hunermend Zaîm Kendeş ku di sala 1971'an de li herêma Kobanî ji dayik bûye; ji ber tinebûna kar, û rewşa aborî ya xirab û dijwariya jiyanê, xwe kuşt. Berî ku Zaîm Kendeş jiyana xwe ji dest bide, ew nêzîkî salekê bû ku ji aliyê nefsî ve aciz û nexweş bû".

Zaîm tenbûrvanek navdar bû û di gellek festîvalên mozîkî de beşdar bûbû. Wî bi tenbûra xwe gellek albomên stranan ji hunermendên Kurd re tomar kiribûn.

Di roja 3'ê Hezîranê de bi temenê xwe yê 43 salî, hunermend Zaîm Kendeş xwe di mala xwe de, li bajarê Kobanî bidarve kir, û dawî bi jiyana xwe anî.

# Li Tirkiyê bo cara yekemîn e ku ferhenga kurdî ya zanista pizişkiyê tê amadekirin




(Rûdaw) – Li bajarê Mêrdînê yê Bakûrê Kurdistanê, pizişkekî ferhenga "zanista pizişkiyê" û têgehên wê yên pirzimanî amade kir. Ferheng bi sê zimanên Kurdî, Tirkî û Îngilizî ye.

Pizişkê bi navê Dr. Seydo Homan ku di Nexweşxaneya Dewletê ya Mêrdînê de Pisporê Nexweşiyên Çerm û Jinan e, bi zimanê îngilizî, Tirkî û her sê zaraveyên kurdî (kurmancî, soranî û zazakî) ferhenga zanista pizişkiyê û têgehên wê amade kir.

Dr. Homan daxuyanî da AA'yê û got: "Ez ji bo ku beşdarî bernameya tenduristiyê ya TRT6 bibim, min li ser têgehên tibbê lêkolîn kir da ku ez wateyên têgehan bi kurdî bibînim. Piştre fikirîm ku ez vê keda xwe bikim pirtûk û çap bikim. Ji bo ku ferheng bibe ferhengeke navneteweyî, min zimanê Îngilizî jî lê zêde kir û ferheng bû ferhengeke pirzimanî, ango Îngilizî, Kurdî û Tirkî."

Hêjayî base ye ku hejmara peyvên Kurdî 25 hezar in. Hejmara peyvên Îngilizî û Tirkî jî nêzîkî 15 hezaran e. Ew ferheng ji 278 rûpelan pêk tê.

# Mihemedriza Şeceriyan dibe xwediyê "Şowaliyê"



Nîşaneya Şowaliyê; xelata neteweyî ya jêhatîbêne, ya Feransê; weke xelat dê bidin Mihemedriza Şeceryan. Paş Şehram Nazirî; Şeceriyan duyemîn stranbêjê Îranî ye ku vê xelatê werdigire.

Bi vî awayî Nîşaneya "Şowaliye" ya sala 2014'an dibe xelata Mihemedriza Şeceriyan, stranbêjê Îranî. Nîşaneya Şowaliye di sala 1963'an de, ji aliyê Jeniral Şarl Dogol serkomarê wê demê yê Feranse hate damezrandin, û ev nîşaneyê didine kesên wisa ku bi kar û çalakiyên xwe, navên hertimî paş xwe bi cih dihêlin.

Mihemedriza Şeceriyan berpirsê Şêvra Bilind ya Mala mozîka Îranê, û avakerê girûpa mozîka "Şehnaz" e, ku di sala 2008'an de hat damezrandin. Ew dersxwanê Derwîşxan û Tac Îsfehanî bûye.

# Gotinên Navdaran



A: Firat Cewerî

Hemû buyer ji sedemekê dertên.

**GiordanoBruno**

Li hemberî nexweşiyê rabin. Ji kesî re behsa Nexweşiya xwenekin,ger hûn wê nexwazin,ew jî we naxwaze.

**Bulwer-Lytton**

Welatê hunermendên mezin tune ye.

**AlfreddeMusset**

Ger hunera kirina gotineke xweş hebe, hunera Xweştêgihîştin û xweşguhdarîkirinê jî heye.

**Epiktetos**

Huner, xwezayek e, ku ji aliyê mirovan ve hatiye holê.

**OwenMerith**

Hunera herî baş hunera jiyanê ye.

**JohnMacy**







**Delal:** Tu ji ku yî?
**Ronî:** Ez ji Mêrdînê me, tu ji ku yî?
**Delal:** Ez ji Dêrsimê me. Tu di pola çendan de yî?
**Ronî:** Ez di pola pêncan de me.
**Delal:** Tu çend salî yî?
**Ronî:** Ez deh salî me, tu çend salî yî?
**Delal:** Ez yazdeh salî me.
**Ronî:** Ez kêfxweş bûm.
**Delal:** Ez jî kêfxweş bûm.

# Tiştonek



A: Mahir Berwarî

- Çume mala mîr, pisyar dikim ji mirovêt pîr, kê dîtiye teyrê bi şîr.
- Ji tiştan ne ti tişt e, nikil weke xişt e, perasû li nav pişt e.
- Ttiştûne serê tiştu xiştûne, pilek lêda kuştûne, pîre gayê zirçûne.

- Reşe û sure ne bizn e, serma dipeçe ne jin e.
- Reşe wekî qîrr, difire weke tîr.
- Reşe wekî qîrr, difire wekî tîr, kutilka çêdike, wekî jina pîr.

- Li vê derê dibe rêz, li wê derê dibe fêz.
-mêriya bi darên mazi ve.

- Sih`ir hêsk, beden nasik, 4 gûçkê bê pêçik.
- Yê keje wekî keşk, yê mite wekî mişk, biharan tere, payizan hişk.

**Xwendevanên hêja!**

**Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi rêya E-maila Agiri2003@gmail.com ji me re bişînin.**

# AGIRÎ

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Hejmar (232)

## Rast û Ecêb

Rengê Hesareya Mirîxê Sor e, jiber ku rûyê wê, ji jengê hatiye dapoşîn.

Hejmara Xaneyên leşê mirov ji hejmara tewahiya akinciyên ser rûyê erdê zêdetir e.

“Pneumonoultramicroscopicsilicovolcanokoniosis” peyva herî dirêj a zimanê Îngilîzî ye ku ji 45 tîpan pêk tê û, li gorî ferhengoka Aksfordê bi wateya “ Curek ji nesaxiyê di nav siyên (şoşên) mirovan de, ku bi sedma toz û xaliyê, çê dibe” û bi vî awayî tê xwendin: (Niyomono-Noltra-Maykroskopîk-Sîlîko-Volkeyno-Konayoss).

Kêşa mirov li ser rûyê mangê, ji %16 ji kêşa rastîn a mirov pêk tê. Wate hekî mirovek bi kêşa 100kg here ser rûyê mangê, wê kêşa wî tenê bibe 16kg.

Mar xwediyê Guh nine û ji rêya ezmanê xwe yê pir hestyar hîs bi lerizînên dengan dike û bi vî awayî dikare haydarî livlivîn û herikînên derdora xwe be.

Zerafe û Huştir bi keştiyên biyabanê tên naskirin, lê Zerafe heyamek zêdetir ji Huştirê dikare di bê aviyê de dewamê bike.

Sêyek ji dahata xêzanêke asayî le welatî Kêniya weke bertîl bona cîbicîkirina karên Rojane, bi berpirsyarên welat re tê dayîn.

“Kolîbrî” take baldar ê cîhanê ye ku dikare li ser piştê, yan jî paş û paş bifîre.

Navê pîrtoka Gînisê çû nava pîrtoka Gînisê de.



# Gelo qedera wan çiqas bê rehm bû

**Li herêma Têkzas a Amerîkayê di bûyerek gellek dilêş a ajotvaniyê de, jin û mêrek hevdû dikujin.**

Nûçegehaniya “Rûsiya tûdey” ragehand ku Kirîstîna Monoz a 26 salî û herweha Nîkolas Kirûz ê 31 salî bi tirumbêlên xwe çend pêngav dûrtir ji cihê karê xwe, bi sedema jidestdana kontrola tirumbêla Kirîstinayê, tûşî bûyera hatinûçûyînê bûn û mixabin her duyan di cih de, canê xwe ji dest dan.

Xwedîkarê Kirîstîna û Nîkolas, dibêje ku tê texmînkirin bi sedema cudahiya dema karkirinê, wan tirumbêlên cuda bona hatin û cûyîna xwe dabîn kiribin û sedema sereke ya bûyerê jî bileziya zêde a tirumbêla Kirîstinayê bûye.



